

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**_Bultena agahdariyê N° 152 – Kanûn 2017_**

*Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882*

*www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. www.facebook.com/bureaukurde*

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

***MIJDAR 2017***

### KONFÊRANS

***26. 11. 2017 : Romana kurdî li Rojavaya Kurdistanê***



**Hoşeng Osê**, nivîskar, helbestvan û rojnamevan, konfêransek bi sernivîsa "Romana kurdî li Rojavyê Kurdistanê" (Kurdistana Sûriyê) kir.

Di despêkê de, OSÊ li ser şêwe, prensîp û girîngiya hunera romanê axivî. Wî aşkere kir ku rast e ku hunera nivîsandina romanê vedigere welatên rojava, lê ku hinek nêrîn hene ku dibêjin ku romana yekemîn di dîrokê de li welatê **Cezayirê**, li bakurê Afrîqa, hatiye dîtin, ku navê wê "**Kerê zêrîn**", ku romaneke komêdî û rexneyî bû, ye û ku nivîskarê wê **Lucius Apuleius Madaurensis** bû (180 125).

Piştre OSÊ berê xwe da romana Kurdî û behsa dîroka wê kir û got ku yekemîn romana kurdî "**Şivanê kurmancan**" a **Erebê Şemo** (1897-1978) bû. Lê tê gotin ku di despêkê de Şemo ev roman bi zimanê rûsî nivîsandiye û di sala 1931 de hatiye çapkirin, û piştre wî ew wegerandiye kurdî, bi tîpên kirîlî, û di sala 1935 de hatiye weşandin. piştre Dr. Nûrdîn Zaza ew wegerandiye tîpên latînî û li Beyrûtê weşandiye.

OSÊ got ku yekemîn romana ku bi zaravê soranî hatiye nivîsandin **"Jana Gel"**, a **Îbrahîm Ehmed** (1914-2000), e. Ew di sala 1956 de hatiye nivîsandin û di sala 1972 de hatiye weşandin.

Her wisa OSÊ behsa girîngiya rola kovar û rojnameyên Kurdî, weke "**Rêya Teze**", "**Gelawêj**" (Stêrka Sibê), "**Hawar**" û "**Ronahî"**, di pêşxisitina çêrok, pexşan (nesr, ne helbest) û romana Kurdî de kir.

Piştre OSÊ berê xwe da Rojavaya Kurdistanê û bi berfirehî behsa romana kurdî, ku bi du zimanan, kurdî û erebî, tê nivîsandin, kir.

Tevlî ku OSÊ navê gelek romanivîsên Kurd weke mînak anî ziman, weke: **Selîm Berekat, Can Dost, Helîm Yûsif, Heysem Husên, Azad Elî, Meha Hesen**... hwd, lê bi taybetî OSÊ li ser romanivîsê Kurd **Fewaz Husên,** ku bi zimanên kurdî û fransî dinivîse, rawestiya û behsa girîngiya ezmûna wî kir.

Hêjayî gotinê ye ku **Hoşeng OSÊ** di sala 1976 de li bajarê **Dirbêsiyê,** yê rojavaya Kurdistanê, hatiye jiyanê. Nivîskar, helbestvan e û bi zimanê kurdî û erebî dinivîsîne û **7 pirtûkên wî yên helbestê û romakeke wî hene**. Romana **H. OSÊ,** ya bi navê **"Bargiraniya Baweriyê", mezintirîn xelata romanê ya cîhana Erebî di cotmeha 2017 de, Li Qeterê, wergirt** û ev roman dê di sala 2018an de were wergerandin zimanê ingilîzî û Fransî**.**

**BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN**

***15 û 16. 11. 2017: Navenda çandî De Markten***

***<u>Kongre û fîlm</u>***
***Di 15 mijdar 2017 de***, navenda çandî ya flamanî De Markten, ku Buroya Kurdî endama wê ye, kongreya xwe ya salane pêk anî. Piştre, fîlmek hat nîşan dan : "Armoede en Cultuur" (Xizanî û Çand), a Dinora De Waele.

***<u>Pêşangeheke grafîkê</u>***
***Di 16 mijdar de***, em beşdar bûn vekirina pêşangeheke grafîkê. Tablo yên hunermendên flamanî û fransîaxêv bûn û vekirina pêşangehê bi du zimanan hat kirin.

***21. 11. 2017: Maseya Dyalogê, ya Internationaal Comité***
Fêdêrasyona Internationaal Comité, ku Buroya Kurdî endama wê ye, maseyeke dyalogê, li navenda çandî ya şaredariya Saint-Josse, vekir. Pisporek li ser statuya "ASBL" "VZW" (rêxisinên ne hukûmî) peyivî.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA ÎRANÊ

**ERDHEJ : JI 400 MIRÎ BÊTIR**



***Di 12. 11. 2017 de***, bi şev, erdhejeke mezzin li nêzîkî sînorê Kurdistana Iraq û Tirkiyê bû. Li Kurdistana Îranê, 444 kes mirin û 7.370 jî birîndar bûn. Bi hezaran avahî hilweşiyan. Şînek li Kurdistanê û li Îranê hat daxuyandin (îlan kirin). Li Kurdistana Iraqê, 7 kes mirin û ji 300 kesan bêtir jî birîndar bûn.

Li Kurdistana Îranê, ev erdhej nemaze li bajarê Kirmanşanê, û li Kurdistana Iraqê li bajarên Halabca û Derbendîxanê bûn.

Li Kirmanşanê, çend roj hukûmeta îranî xizmetên weka av, êlêktrîk û gazê dabîn (te'mîn) ne kirin, û mêdyayên îranî li ser erdhejê ne peyivîn. Zarok sêwî bûn. Li gora wezareta îranî ya tendurustiyê (saxî), 9.000 kes nexweşiyên wan ên psîkolojîk hene.

***Di 20 Mijdar de***, serokê îranî, Ayatullah Alî Xameneyî, çû seredana Kirmanşanê. Li gora berpirsiyarên fermî (resmî), zararên xanî û avahiyên fermî gihajtin 650 milyon dolaran. 200.000 lawir (heywan) mirin û çandin (zira'et) zarareke 70 milyon tumen (pereyê îranî) dît.

***Di 27 Mijdar de***, cîgirê serokê îranî, Ishak Cihangîrî, tevî çend wezîran, çû seredana Kirmanşanê, ji bo çavdêrîkirina belavkirina alîkariyan û bangî xelk kir ku alîkariya qurbanan bike.

Ev seredan di demeke ku tê de berpirsiyarê olî yê Belûçan (rûniştevanên Belûçistanê, parêzgehek li Îranê), Mewlewî Abdul-Hamîd, bi vîdêoyekê, xemgînî û piştgiriya xwe ji rûniştevanên Kirmanşanê re ravekirin bû hat kirin. Ev yek, weka bersîvekê ji oldarên ku, li ser torên civakî, got ku ev kes rastî hêrsa Xwedê hatin, ji bo ku wan sûc kiri bûn!

Ev erdheja mezzin li Kurdistana Tirkiyê (Colemêrg, Wan, Şirnex, Êlih, Sêrt, Bedlîs, Amed, Erzingan û Çewlik) û Kurdistana Sûriyê (Qamişlî û Tirbê Sipî) jî belav bû.

Heta li Îran, Iraq, Sûriye, Kuweyt û Erebistana Suûdî jî hest bi vê erdhejê bû.

***Di 21 Mijdar de***, parêzgarê Halabca, li Kurdistana Iraqê, alîkarî, bi riya deriyê sînorê yê Başmaxê, şand.

Li Wanê, li Kurdistana Tirkiyê, Encumena Aborî dest bi kampanyake alîkariya qurbanan kir. Alîkariya ku ewê were berhev kirin ewê ji Hîva Sor a Tirkiyê re bê şandin.

Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, li konfêranseke çapemeniyê got ku Hîva Sor û AFADê yaneyên (équipes) hawarê şandin û ku karwaneke 50 barhilgiran (kamyon) ji deriyê sînorê yê Xabûrê derbas bû.

Li Kurdistana Sûriyê jî Hîva Sor a Kurdî alîkarî berhev kir.
*(rudaw.net, 13, 14, 16, 17, 21, 22, 25, 26, 27.11.2017)*

## AMERÎKA LI DIJÎ ÎRANÊ

***Di 31 Cotmeh 2017 de***, wezareta amerîkî ya parastinê polîsên îranî "pasdar" bi piştgirîkirina têrrorîsmê tawanbar kirin û xistin nav lîsta têrrorîst a vî welatî.

Di 13 Cotmeh de, serokê amerîkî, Donal Trump, stratêjiya welatê xwe li hemberî Îranê daxuyandi bû û ji Kongrêsê (parlement) xwesti bû ku li lihevkirina xwe ya atomî bi Îranê re ji nuh de binêre. Trump Îran bi *"piştgirîkirina têrrorîsmê û tevlihevkirina rewşa navçeyê"* tawanbar kir. Di heman rojê de, wezareta amerîkî ya parastinê "pasdar" xistin nav lîsta têrrorîst.
*(rudaw.net, 01.11.2017)*

## PARTIYÊN KURDÎ ALÎKARIYA ROJAVA DIXWAZIN

Partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdên Îranê Ewropa û Amerîka bi metirsiya (tehlike) rewşê li Îran û Iraqê agahdar kirin.
*(rudaw.net, 01.11.2017)*

## LIHEVKIRINEKE ÎRANÎ-IRAQÎ LI SER SÎNOR

Li gora mêdyayên îranî, berpirsiyarên îranî û iraqî li ser vekirina deriyê sînorî yê Perwîzxanê, ku li parêzgeha Kirmanşanê, li Kurdistana Îranê, ye, li hev kir.

Weka bertek (réaction) li dijî giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê, ku di 25 Îlon 2017 de bû, Îranê firrînên xwe li Kurdistana Iraqê rawestandin, piştre hemî deriyên xwe yên sînorî yên pê re girtin. Lê piştre, wê deriyê ku li sînorê Suleymaniyê ye vekir û hatûçûn û bazarganî tê de ji nuh de dest pê kir.
*(rudaw.net, 02.11.2017)*

## PIRTÛKEKE QEDEXE



***Di 26 Cotmeh 2017 de***, nivîskarê navdar ê Kurdistana Îranê, Alî Eşref Derwîşyan, li bajarê Kerecê wefat kir. Wî ji 50 pirtûk, bi zimanê farisî, nivîsî bûn (roman, çîrok û lêgerînên wêjeyî "edebî").

Berê 9 salan, nivîskarê kurd Areş Sencabî, pirtûkek li ser vî nivîskarê navdar, bi sernivîsa "Nasandina Alî Eşref Derwîşyan" nivîsî bû. Heta nuha, wezareta îranî ya çandê weşandina wê qedexe dike.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

**2 KURD JI SEDEMA ALA KURDÎ TÊN CEZA KIRIN**

Dadgeha şoreşgerî ya bajarê Merîwanê, li Kurdistanê, 2 Kurd bi 4 sal zîndan ceza kirin, ji bo
ku wan ala kurdî li cêjna Newrozê bilind kiri bû.

Li gundên Merîwanê, li her Newrozê, sirûda neteweyî ya kurdî "Ey Reqîb" û stranên din ên şoreşgerî tên stiran û ala kurdî tê bilind kirin.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

**BERPIRSIYAREKÎ EREB LI HOLLANDA TÊ KUŞTIN**

***Di 08 Mijdar de***, serokê Tevgera Erebî ji bo Azadkirina Ehwazê, Ehmed Mewla, bi 3 gulleyan li Den Haagê, li Hollanda, hat Kuştin. Ew di ereba xwe de, piştî merasîma şînekê, bû.

Ehwaz paytexta parêzgeha Xûzistanê ye. Piraniya rûniştevanên wê Ereb in, lê li Bakur û Rojhilata vê parêzgehê jimareke mezzin ji Kurdên Feylî (şîî) û Lor (ji parêzgeha Loristanê) heye.
*(rudaw.net, 08.11.2017)*

## KURDISTANA IRAQÊ

**ERDHEJ**

***Di 12 Mijdar 2017 de***, bi şev, erdehejek li Kirmanşanê, li Kurdistana Îranê (li Kurdistana Îranê binêre. Gelek kes mirin û birîndar bûn) û li Halabca, Kurdistana Iraqê, bû. Li Halabca 4 kes mirin û 50 jî birîndar bûn. Ev erdhej li Kurdistana Tirkiye û Sûriyê jî, bê ku qurban bibin, bû.

Serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, û cîgirê wî Qubad Talabanî, tevî wezîrên tendurustî, hawîrdor û perwerdeyê, û çend berpirsiyaran, çûn seredana Derbendîxanê, li nêzîkî Suleymaniyê.

Nêçîrvan Berzanî daxuyand ku buceyeke taybetî ji bo qurbanên vê erdhejê hat veqetandin.

Partiya Kurdistana Tirkiyê, DBP, bangî Kurdistaniyan kir, nemaze li Ewropa, ku alîkariya qurbanan bikin. Serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, daxuyand ku Tirkiyê karwaneke alîkariyê şand Kurdistana Iraqê.
*(rudaw.net, 13 û 14.11.2017)*

**GIŞTPIRSÎ LI SER SERXWEBÛNÊ (DÛMAHÎK)**

***Biryara dadgeha fêdêral***

***Di destpêka Mijdar 2017 de***, dadgeha fêdêral a iraqî bersîv da serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, û jê re got : *"Em nikarin bêjin ku giştpirsî ne destûrî ye, ji bo ku dîtina aliyê dijber ne hat xwestin"*. Hukûmeta iraqî li dijî giştpirsiya (référendum) li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê, ku di 25 Îlon 2017 de bû, bû.

Lê, ***di 20 Mijdar de***, heman dadgehê dîtina xwe guherand û biryar stend ku ev giştpirsî li dijî destûra iraqî bû !

Serokwezîr, Heyder Ebadî, bi erênî li vê biryarê nêrî. Serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, serokwezîrê wê Nêçîrvan Berzanî, û hukûmeta Kurdistanê bi neyênî (négatif) bertek (réaction) da vê biryara serokwezîrê iraqî. Wan li pergala (système, nizam) dadmendiyî ya iraqî bi hûrî nêrî û got ku dadgeha fêdêral yekaliyî ye.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 02, 20 û 26.11.2017)*

***Bankên iraqî xwe ji Kurdistanê dikişînin***
Banka navendî ya iraqî ji hemî şaxên xwe yên li Kurdistanê xwest ku karê xwe li wê derê rawestînin.
*(rudaw.net, 08.11.2017)*

***Parlementa iraqî tecrube dike ku 15 parlementerên kurd ceza bike***
***Di 16 Mijdar 2017 de***, di rûniştineke parlementerî de, cezakirina 15 parlementerên kurd ku beşdar bûn giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê hat pêşniyar kirin. Lê piraniya endamên kurd ên vê parlementê ev rûniştin boykot kir. Vê yekê ne hişt ku giftûgo li ser vê xalê were kirin.

Encumena lêgerînan dosyeyek li ser van parlementerên kurd pêk anî û ew şand dadgehê.
*(rudaw.net, 17 û 23.11.2017)*

***Li Kerkûkê, lêgerîna kesên ku beşdar bûn giştpirsiyê***
***Di 16 Mijdar de***, birêvebiriya tendurustiyê ya Kerkûkê ji hemî şaxên xwe xwest ku navên karmendên ku beşdar bûn giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê bidin wê. Wê ev giştpirsî bi *"ne şer'î"* (illêgal, ne qanûnî) bi nav kir.
*(rudaw.net, 18.11.2017)*

***Ewê buceya Kurdistanê were kêm kirin***
Berdevkê serokwezîrê iraqî, Sa'dî Hedîsî, daxuyand ku di 2018 de, ewê para Herêma Kurdistanê ji 17% dakeve 12.67%.
*(rudaw.net, 19.11.2017)*

## PIRS LI MÛSIL Û KERKÛKÊ
**(2 navçeyên kurdî yên xwedî pêtrol, lê li bin desthilata Bexdadê)**

***Civîna serbazên Kurdistan û Iraqê***
***Di 02 Mijdar 2017 de***, bi amadebûna çavdêrên amerîkî, şandeke serbazî (eskerî) ya iraqî û yeke Kurdistanî rastî hevdu hatin, ji bo giftûgokirina pirsên xwe. Ev civîn piştî yên din, ku li Rojhilata Mûsilê û li derên din hatin bûn kirin, bû.
*(rudaw.net, 02.11.2017)*

***Helwesta Amerîka***
Balyozê (sefîr) amerîkî li Iraqê, Douglas Sulliman, li Hewlêrê rastî serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî hat. Wî jê re got ku Amerîka hukûmeteke kurdî ya xurt, di çarçeveya Iraqeke fêdêral de, dixwaze.

Jimarek ji sênatorên amerîkî nameyek ji serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, re nivîsî û tê de jê xwest ku bi Herêma Kurdistanê re kar bike.
*(rudaw.net, 02.11.2017)*

***Alîkariya leşkerî ya Amerîka***
Kongrêsa amerîkî pejirand (qebûl kir) ku alîkariyeke leşkerî ya 350 milyon dolaran ji Pêşmerge re were dayîn.
*(avestakurd.net, 11.11.2017)*

***Daxwaziya parlementerên brîtanî***
Hin parlementerên brîtanî nameyek ji serokwezîr Theresa May re nivîsî û tê de jê xwest ku ji bo rawestandina nelihevkirin û şerrê di navbera leşkerê iraqî û Pêşmerge de û bangkirina her du aliyan ji bo dyalogê bixebite.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

***Riswakirinên lordên brîtanî***
Hin lordên brîtanî ji hukûmeta xwe xwest ku li hemberî êrîşên mîlîsên şîî û leşkerê iraqî li dijî Kurdan bêdeng nemîne.
*(rudaw.net, 10.11.2017)*

***Helwesta UNê***



***Di 07 Mijdar de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya şandê taybetî yê U.N.ê ji bo karên Iraqê, Yan Kobish, kir. Ew li ser pêwîstiya destpêkirina giftûgoyan di navbera Hewlêr û Bexdadê de peyivîn.
*(rudaw.net, 07.11.2017)*

***Piştgiriya Fransa ji Kurdistanê re***

***Di 09 Mijdar de***, konsulê Fransa li Kurdistanê, Dominique Mas, nameyeke serokê fransî Emmanuel Macron da serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî. Wî tê de piştgiriya xwe ji Herêma Kurdistanê re ravekir.

***Di 12 Mijdar de***, ev konsul, tevî parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî, beşdar bû belavkirina alîkariya Fransa ji penaberên Kerkûk û Xurmatû re. Wî daxuyand ku divê ku çareyeke ramyariyî (siyasî) ji aliyê Bexdad û Hewlêrê were dîtin, ji bo ku penaber karibin vegerin malên xwe, û ku Fransa amade ye ku her alîkariyekê bike ji bo ku dyalog di navbera van her du aliyan de bibe.

Parêzgarê Hewlêrê got ku ji 80.000 penaberên Kerkûkê bêtir li Hewlêrê hene û ku yên din jî li Suleymaniyê hene. Wî bangî rêxistinên navneteweyî kir ku alîkariya wan bikin.
*(rudaw.net, 09 û 12.11.2017)*

***Piştgiriya parlementerên îtalî***

Hin sênator û parlementerên îtalî piştgiriya xwe ji Kurdistanê re nîşan da û li dijî êrîşên hukûmeta iraqî û mîlîsên şîî derketin.
*(rudaw.net, 09.11.2017)*

***Kurd nikarin li Kerkûkê siyasetê bikin***

Piştî rizgarkirina Kerkûkê ji Dewleta Islamî ji aliyê mîlîsên şîî yên iraqî, yên Heşdî Şe'bî, û leşkerê iraqî, hukûmeta iraqî ji rûniştevanên wê yên kurd re qedexe kir ku siyasetê bikin û ku çekkên wan, ji bo xweparastinê, hebin.
*(Rudaw.net, 05.11.2017)*

***2 teqîn û şerr li Kerkûkê***

***Di 05 Mijdar de***, du teqînên mezzin li Kerkûkê bûn. Amanca wan mîlîsên Heşdî Şe'bî bû. 5 kes hatin kuştin û 10 jî birîndar bûn.

Di heman demê de, şerr di navbera rûniştevanan û hêzên leşkerî yên taybetî yên iraqî, yên bi navê "Swat", de derket.
*(rudaw.net, 05.11.2017)*

***Teqîn li Xurmatû***

***Di 21 Mijdar de***, erebeyeke bombekirî li navenda Xurmatû, ku girêdayî Kerkûkê ye, teqiya. 19 kes hatin kuştin. Ji 16 Cotmeh 2017 de, Xurmatû ji aliyê leşkerê iraqî û mîlîsên şîî hatiye çavdêrî (kontrol) kirin.
*(rudaw.net, 21.11.2017)*

***Pêtrola Kerkûkê ji Îranê re tê şandin***

Cîgirê serokê koma Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK) li parlementa iraqî, Şaxawan Abdullah, daxuyand ku ***ji 23. 10. 2017 de***, hukûmeta iraqî pêtrola Kerkûkê dişîne Îranê.

Li gora BasNews, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî rojane pêtrolê ji bîrên bajarokê Taze, yê girêdayî Kerkûkê, derdixînin û dişînin Îranê. Berê 16. 10. 2017, ev pêtrol bi boriya Kurdistan-Ceyhan ji Tirkiyê re dihat şandin.

Bîrên pêtrolê yên Kerkûkê rojane 400.000 bermîl derdixînin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 09 û 11.11.2017)*

***Dadgeheke leşkerî li Kerkûkê***

***Di 16. 10. 2017 de***, piştî êrîşeke mezzin, Kerkûk ket bin desthilata mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî. Hukûmeta iraqî tê de dadgeheke leşkerî danî û dadmendekî şîî û yekî sunnî wê bi rê ve dibin. Heta nuha, 500 dosya li dijî rûniştevanên kurd ên Kerkûkê hatin vekirin.
*(rudaw.net, 16.11.2017)*

***Serbazên amerîkî li Kerkûkê***

***Di 29 Mijdar de***, êvarê, 40 serbazên amerîkî, tevî tankên xwe, li Kerkûkê bi cî bûn, ji bo ku ewlehiya we dabîn (te'mîn) bikin.
*(rudaw.net, 29.11.2017)*

***Hêzeke kurdî ya nuh li Xurmatû***

Hêzeke kurdî ya nuha, ya bi navê "Hêzên Serxwebûnê", li Xurmatû bi cî bû. Ew ji aliyê rûniştevanên ku hebûnên xwe di êrîşên mîlîsên şîî yên 16. 10. 2017 de hunda kirin hatiye ava kirin.
*(rudaw.net, 29.11.2017)*

**ŞINGAL**
**(Navçeyeke kurdî ya girêdayî Mûsilê, ku rûniştevanên wê Kurdên ji ola êzdî ne)**

***Birêvabiriya hevbeş a PKK û mîlîsên şîî***

Bê fermaneke parêzgeha Nînewa, ne jî ya hêzên leşkerî yên Şingalê, PKK û mîlîsên şîî yên Heşdî

Ş'ebî postên idarî li Şingal û Sinûnê di navbera xwe de pay kirin. Zilamekî nêzîkî PKKê bû şaredarê Şingalê û birêvebirekî mîlîsên şîî jî bû yê bajarokê Sinûnê.

Dema ku, di 17 Cotmeh 2017 de, hêzên Pêşmerge xwe ji Mûsilê kişand, ev mîlîsên şîî û leşkerê iraqî ketin nav wê (li bultenên me yên buhurî binêre).
*(rudaw.net, 01.11.2017)*

***Keçeke êzdî ji DAIŞê tê rizgar kirin***
Cardin keçeke kurd a êzdî, ya 14 salî, Meyade Reşo, ji Dewleta Islamî hat rizgar kirin. Di 03 Tebax 2014 de, ew, tevî 11 endamên malba xwe, hati bû revandin. Ji vê malbatê, bitenê ew hat rizgar kirin.

Meyade 10 caran ji aliyê Dewleta islamî hati bû firotin û kirrîn. Cara dawîn li Reqqa, paytexta DAIŞê li Sûriyê, bû. Nuha, ew li bal pismamê xwe, li kampeke penaberan li Duhokê, li Kurdistanê, ye.

Piraniya kesên ku ji aliyê DAIŞê hati bûn revandin zarok in. Heta nuha, 1.728 ji wan hatine rizgar kirin. Tecrubeyên rizgarkirina wan dajon (dewam dikin).
*(rudaw.net, 23.11.2017)*

**DEWLETA ISLAMÎ QELS BÛYE**
Berdevkê hevbendiya navneteweyî ji bo têkoşîna li dijî Dewleta Islamî, Ryan Dillon, daxuyand ku 96% ji axa Iraq û Sûriyê ji Dewleta Islamî hat rizgar kirin, lê ku ev nayê wateya (ma'na) ku metirsiya (tehlike) wê bicarek rabûye û ku hîn gelek tişt divên ku bên kirin.
*(rudaw.net, 11.11.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Yekîtiya Ewropî***
***Di 13 Mijdar 2017 de***, rawêjkarê encumena neteweyî ya ewlehiya Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, pêşwaziya balyozê (sefîr) Yekîtiya Ewropî li Iraqê, Ramon Casas, kir. Wan rewşa dawîn li herêmê û pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin. Balyoz hêviya xwe ku dyalogeke rasterast (direct) di navbera her du aliyan de bibe û ku pirsên (problêm) wan werin çare kirin ravekir (got). Berzanî got ku ew hêvî dikin ku ev pirs bi awayekî dirêj werin çare kirin, ji bo ku nedadiya (neheqî) dîrokî ku gelê kurd kişand venegere. Û wî got jî ku ewê Kurdistan tucar pelixandina mafên xwe nepejirîne (qebûl neke). Wî hêvî kir ku civata navneteweyî jî di vê babetê (mew'zû) de rolekê bilîze.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 14.11.2017)*

***Amerîka***
***Di 17 Mijdar de***, Mesrûr Berzanî li Hewlêrê pêşwaziya nimînendeyê (temsîlcî) serokê amerîkî di hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî de, Brett McGurk, kir. Wan pêşdeçûna leşkerî û pirsên di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin. McGurk got ku ewê welatê wî hertiştî bike ji bo ku ev pirs bi çekkan neyên çare kirin.

***Hukûmeta Iraqî***
Serokê iraqî Fuad Ma'sûm çû Hewlêrê û rastî serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî, û cîgirê wî Qubad Talabanî, hat. Wan rewşa Kerkûkê û destpêkirina diyalogekê di navbera Hewlêr û Kerkûkê de giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 29.11.2017)*

**SEREDANÊN DERVE**

***Amerîka***
***Di 13 Mijdar 2017 de***, berpirsiyarê pêwendiyên derve yên Kurdistana Iraqê, Fellah Mustafa, li Washingtonê bi nimînendeyê (temsîlcî) serokê amerîkî li hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî, Brett McGurk, re civiya. Wan rewşa nuha li Iraq û Kurdistanê û hebûna Kurdistaneke xurt, di çarçeveya destûra iraqî de, giftûgo kirin.

Ji berê jî, wezîrê amerîkî yê parastinê, James Mattis, piştgiriya welatê xwe ji dyalogekê di navbera Hewlêr û Bexdadê de ravekiri bû.
*(rudaw.net, 14.11.2017)*

***Yekîtiya Ewropî***
***Di 13 Mijdar de*** jî, rawêjkarê (muşawir) ewlehiya Herêma Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, pêşwaziya balyozê amerîkî yê Yekîtiya Ewropî li Iraqê, Ramon Casas, kir. Wan rewşa dawîn li

navçeyê û pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin. Balyoz hêvî kir ku zû dyalogek di navbera her du aliyan de, li ser bingeha destûra iraqî, were kirin. Berzanî ev yek pejirand (qebûl kir), lê bi mercê (şert) ku mafên Kurdistanê neyên pelixandin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 14.11.2017)*

**DEYNÊN IRAQÊ : 133 MILYAR DOLAR**
Cîgirê serokê iraqî, Eyad Ellawî, daxuyand ku li gel girîngiya hatinên Iraqê, deynekî wê yê 133 milyar dolaran heye û ku sedema vê yekê pirsên olî û êtnîkî ne û ku xelkê iraqî bi xurtî li dijî vê yekê ye.
*(rudaw.net, 18.11.2017)*

# KURDISTANA TIRKIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê DE

***Tevgereke hevbeş a Tirkî-Îranî***
Serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, daxuyand ku Tirkiyê û Îranê li hev kir ku tevgereke hevbeş li çiyayê Qendîlê bikin, ji bo lidûketina PKKê.
*(rudaw.net, 10.11.2017)*

***Amed (Diyarbekir)***
***Di 03 Mijdar 2017 de***, di demjimêr 5 a serê sibê de, tevgereke leşkerî li bajarokê Peyazê dest pê kir. Pevçûn heta demjimêr 8 ajot (dewam kir). Polîsek hat kuştin û 9 jî birîndar bûn. Ji çapemeniyê re hat qedexe kirin ku fîlmên bûyeran bikişîne.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

***Kurdistana Iraqê***
***Di 03 Mijdar de***, firokeyên tirkî çiyayê Metîn û derdorên gundên Guherzê û Bilavê, yên bajarokê Nihêlê, navçeya Amedî, bombe kirin, ji bo lidûketina PKKê. Di 2017 de, 15 sîvîl li navçeya Amedî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

***Di 05 Mijdar de***, kampên PKKê li çiyayê Asosê, li nêzîkî Suleymaniyê, hatin bombe kirin. Ev çiya li sînorê Kurdistana Iraq û Îranê ye. Şervanên PJAKê, şaxeke PKKê li Kurdistana Îranê, jî tê de hene.
*(rudaw.net, 05.11.2017)*

***Di 12 Mijdar de***, cardin çiyayê Asosê, li nêzîkî gundê Gelalê, yê girêdayî bajarokê Mewatê, hat bombe kirin. Tukes ne hatin kuştin.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

***Çiyayê Tendurekê, li Agirî***
***Di 12 Mijdar de jî***, wezareta tirkî ya parastinê daxuyand ku leşkerê tirkî 2 dronên çînî, yên bombekirî, ku şervanên PKKê li çiyayê Tendurekê, li navçeya Bazîdê, li Agirî, bi kar tînin, xistin xwarê. Û wê got jî ku ev cara yekemîn e ku PKK ev celeb çek bi kar tîne û ku ji berê Dewleta Islamî jî firokeyên bê pilot li Iraq û Sûriyê bi kar dianîn.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

***Sêrt (Siirt) û Şirnex (Şırnak)***
Parêzgarê Sêrtê daxuyand ku di ***17 Mijdar*** de, êvarê, pevçûnên giran di navbera PKK û leşkerê tirkî de bûn û ku 3 PKK, ku ji wan jinek, hatin kuştin.

Bi ser de jî, leşkerê tirkî daxuyand ku pevçûn li çiyayê Besta, li nêzîkî Şirnexê, bûn û ku 2 fermandarên PKK hatin kuştin. Xelatek ji bo kuştina wan hati bû soz dayîn.

***Di 23 Mijdar de***, li bajarokê Silopî, yê girêdayî Şirnexê, PKKê êrîşî leşkerê tirkî kir. 2 serbaz birîndar bûn.
*(rudaw.net, 18 û 23.11.2017)*

***Giresun, li Tirkiyê***
Pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî de, li bajarokê Yağlıdere, yê bajarê tirkî Giresunê, bûn. 1 PKK hat ragirtin.
*(rudaw.net, 24.11.2017)*

***Ragirtin li 6 bajarên Kurdistan û Tirkiyê***
***Di 23 Mijdar 2017 de***, hêzên ewlehiyê yên tirkî tevgerek li 6 bajarên Kurdistan û Tirkiyê kir û tê de 19 kes ragirtin. Ew bajarên Adana, Istanbul, Bursa, Amed, Semsûr û Êlih (Batman, girêdayî Dersîmê) ne. Tevger dajo (dewam dike).
*(rudaw.net, 23.11.2017)*

***Qedexeya hatûçûnê li Farqînê (Amed)***
***Di 23 Mijdar de***, di demjimêr 6 a serê sibê de, parêzgarê Amedê (Diyarbekir) hatûçûn li Farqînê, girêdayî Amedê, ji sedema tevgerên li dijî PKKê, qedexe kir.
*(rudaw.net, 23.11.2017)*

***Qedexeya hatûçûnê li 42 gundên Amedê***
***Di 29 Mijdar de***, bi daxuyaniyeke nivîskî, parêzgarê Amedê fermana qedexekirina hatûçûnê li 42 gundên Amedê, ji sedema şerrê li dijî PKKê, da. Ev qedexekirin di demjimêr 5 a serê sibê de dest pê kir û ewê heta fermaneke din bajo.
*(rudaw.net, 29.11.2017)*

***Bersîva PKK ji serokê tirk re***
***Di 18 Mijdar 2017 de***, serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, daxuyand ku ewê leşkerê tirkî tevgerekê li dijî PKKê, li çiyayê Qendîlê û li Efrînê, bike.

Hev-serokê Rêxistina Civakên Kurdistanê (KCK), ku girêdayî PKKê ye, Cemil Payık, li têlêvîzyona "Ronahî" bersîva wî da û got : *"Bila Tirkiye were. Tukes destê wê ne girtiye. Eger Tirkiye were Qendîl û Efrînê, ewê ev tevger jê re bibe bîreke bê binî. Tevgerek li derveyî sînorên Tirkiyê ewê xizmeta Kurdan bike"*.
*(avestakurd.net, 19.11.2017)*

**10 SAL ZÎNDAN JI PARLEMENTEREKE KURD RE**
5mîn dadgeha cezayên giran a Amedê (Diyarbekir) Selma Irmak, parlementera partiya kurdî HDPê, bi 10 sal zîndan tawanbar kir. Ew bi endambûn û propagandakirina rêxistinekê hatiye tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

**22 KARMEND TÊN DERXISTIN**
Piştî daxuyandina rewşa awarte li Tirkiyê, hukûmeta tirkî 76 karmendên Sendîka Karmendan (BES) ji kar avêtin. Ji wan 22 li Amedê. Li gel bawernameyên (diplômes) wan, ji wan re qedexe ye ku karên din li sazendeyên fermî bikin. Loma, wan xwaringehek (restaurant) vekir.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

**DAXUYANIYA ÇAPEMENIYÊ YA "HDP" LI ISTANBULÊ**
***Di 04 Mijdar de***, partiya kurdî HDP li Istanbulê daxuyaniyeke çapemeniyê weşand û tê de girtina hev-serokên xwe, Selahettin Demirtaş û Figen Yüksekdağ, û 11 ji berpirsiyar û parlementerên xwe, tawanbar kir. Ew di 04. 11. 2016 de hati bûn ragirtin.
*(rudaw.net, 04.11.2017)*

**MÎTÎNGA "HDP"ê LI AMEDÊ**



***Di 12 Mijdar de***, partiya HDPê mîtîngeke mezzin li Amedê, li bin duruşma (slogan) "Dê Azadî Bi Ser Bikeve", pêk anî. Parlementera vê partiyê li parlementa tirkî, Feleknaz Uca, got ku pirsên di navbera Kurdan û Tirkan de bê Abdullah Öcalan (serokê PKKê ku li zîndanê ye) ewê nikaribin bên çare kirin.

Ji derveyî hev-seroka HDP, Serpil Kemalbay, 8 parlementerên vê partiyê, ku 6 ji wan jin in, beşdarî vê mîtîngê bûn.

9 parlementerên vê partiya "HDP", ku ji wan Selahettin Demirtaş, û bi hezaran ji endam û sempatîzanên wê hîn jî li zîndanê ne. Bi ser de jî, nedestdayîna parlementerî (immunité parlementaire) ya 5 ji van parlementeran hat rakirin û 94 ji şaredarên wê ji kar hatin avêtin.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

**30 "DBP" Û 9 JIN LI BISMILÊ TÊN RAGIRTIN**
Hêzên ewlehiyê yên tirkî tevgereke lêgerînan li malan, li bajarokê Bismilê, ku girêdayî Amedê ye, kir. Wan 30 kes, ku ji wan hev-serokê şaxa Bismilê ya partiya kurdî DBP, Ali Çelik, ragirtin.

Bi ser de jî, tevgerek li gundê Albeyê, yê girêdayî Bismilê, bû. 9 jin hatin bin çav kirin.

Kesên ku hatin ragirtin hatin birin navenda ewlehiyê ya Amedê. Tukes sedema van ragirtinan tê ne gihajt.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

**OSMAN BAYDEMIR TÊ AZAD KIRIN**
***Di 12 Mijdar 2017 de***, şaredarê berê yê Amedê û parlementerê Riha (Urfa) yê partiya kurdî HDP, Osman Baydemir, hat ragirtin. Piştre, ew hat birin dadgeheke Istanbulê, ji bo jêpirsîneke. Vê dadgehê fermana ragirtina wî di 9 Mijdar 2017 de da bû. Wê ew bi kirina propaganda ji bo rêxistineke têrrorîst tawanbar kiri bû. Piştî guhdarîkirina wî, ew hat azad kirin.

Ji 2004 heta 2014, Baydemir şaredarê Amedê bû. Di 2007 de, ew hati bû ragirtin û piştre azad kirin, ji bo ku wî tîpê "W" di cêjna Newrozê de bi kar anî bû (di tirkî de "w" nîn e) !

Di Hezîran 2017 de, ew bi piçûkkirina (heqaretkirin) karmendekî dewletê hat tawanbar kirin. Lê, piştî demjimêr û nîvekê, hat azad kirin.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

**LEYLA ZANA JI PARLEMENTÊ TÊ AVÊTIN**
***Di 21 Mijdar de***, encumena tevlihev a destûr û dadiyê, ya parlementa tirkî, biryar stend ku Leyla Zana, parlementera partiya kurdî "HDP", bavêje. Ev yek ji bo ku ew beşdar ne bû civînên vê parlementê.
*(rudaw.net, 22.11.2017)*

**80mîn SERSALIYA BIDARVEKIRINA "SEYYID RIZA"**
***15 Mijdar 2017*** 80mîn sersaliya bidarvekirina Seyyid Riza, serokê serhildana Dersîmê (Tunceli), di 1937 û 1938 de, ye. Li gora amarên fermî yên tirkî, piştî vê serhildana mezzin, 12.000 kes ji aliyê leşkerê tirkî hatin kuştin. Lê li gora lêgerên kurd, ev jimar gihajt 90-120.000.
*(rudaw.net, 15.11.2017)*

**48 QAÇAXÇÎ TÊN RAGIRTIN**
Li bajarokê Depê, yê girêdayî Elazîzê, 48 qaçaxçiyên biyanî hatin ragirtin. Ew ji Afxanistan, Uzbêkistan, Tirkmenistan û Burma bûn. Di nav wan de jin û zarok hebûn.
*(rudaw.net, 02.11.2017)*

**561 BIYANÎ TÊN RAGIRTIN**
561 kesên ku bi riyên ne yasayî (illêgal) gihajti bûn Kurdistana Tirkiyê li bajarê Agirî hatin ragirtin. Ew ji Afxanistan, Bengladêş û Pakistanê bûn. Ji wan 5 qaçaxcî.
*(rudaw.net, 09.11.2017)*

**BAŞTIRÎN PÊTROLA TIRKIYÊ LI KURDISTANÊ**
Parêzgarê Sêrtê (Siirt), li Kurdistanê, Ali Fuat Atık, çû seredana bîrên pêtrolê li Doğu Sadakê, li bajarokê Dihê, yê girêdayî Sêrtê. Birêvebirê encumena şirketa lêgerîna pêtrolê "Aladdin Middle East", Cem Sayer, agahdarî li ser van bîran dan wî. Wî got ku rojane 1.000 bermîl pêtrol ji 4 bîran tên derxistin, ku ewê jimara wan bilind bibe û bigihîje 6 bîran û ku ev petrol baştirîn ê Tirkiyê ye. Û wî got jî ku di 2014 de bîra yekemîn hati bû dîtin.
*(rudaw.net, 15.11.2017)*

**LI TIRKIYÊ MAFÊN ZAROKAN TÊN PELIXANDIN**
***Di 20 Mijdar de***, bi hinceta Roja Navneteweyî ya Zarokan, 11 barroyên kurdî daxuyaniyek kir û got ku li tevahiya Tirkiyê mafên zarokan tên pelixandin : Di 2016 de, 15.051 doz (da'wa) li dijî zarokan hatin vekirin, 45 zarok hatin kuştin û 2.106 hatin ragirtin. Di 5 mehên pêşîn ên 2017

de, 182 zarok hatin bi kar anîn. Li bajarên ku tê de şerr heye, 63.000 zarok koç bûn Ewropa.

Barroya Amedê got jî ku bi sedan zarok li bin tankên leşkerê tirkî mirin û ku kesên sûcdar ne hatin tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 20.11.2017)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ




## EFRÎN

***Hemahengî bi Rûsya re***
Hev-serokê berê yê partiya kurdî PYD (Partiya Yekîtiya Dêmokratîk), Salih Muslim, ji ajanseke rûsî re daxuyand ku Hêzên Sûriya Dêmokraîk "HSD", ku serokatiya wê PYD dike, bi Rûsya re di hemahengiyê (coordination) de ne. Û wî got jî ku divê ku ev welat fişar (zaxt, pression) lis er hukûmeta sûrî bike, ji bo ku eva dawîn dixwaze ku pirsan bi şerr û êrîşan çare bike.
*(rudaw.net, 01.11.2017)*

***Di 03 Mijdar 2017 de***, hêzên dijberiya sûrî gundên Qestel Cindo, Eyn Deqne û Merenazê, ku girêdayî bajarokê Şêrawa ne, gundê Basofan, ê heman bajarokî, û gundên Til Barîn, Til Botan û Til Bedirxan, ên girêdayî cindirêsê, bombe kirin. Pevçûn di navbera van hêzên sûrî û yen kurdî "YPG" de bûn.
*(rudaw.net, 04.11.2017)*

***Leşkerê tirkî li Efrîn û Idlibê***
***Di 18 Mijdar de***, dereng bi şev, careke din tankên tirkî ketin nav axa sûrî, li nêzîkî Efrîn û Idlibê. Hukûmeta tirkî dibêje ku ev tevger li gora lihevkirina Astana, bi Rûsya re, hatine kirin.

***Di 19 Mijdar de***, cardin bi şev, firokeyên tirkî bê rawestan li ser navçeya Efrînê firriyan.

***Di 20 Mijdar de***, YPG'yên kurdî bi kurtî şerrê leşkerê tirkî kir. Vî leşkerî êrîşî gundên Basûfan û Bayê, yên girêdayî bajarokê Şêrawa, yê navçeya Efrînê, kir.

Berpirsiyarê partiya kurdî "Yekîtî" li Efrînê, Şêxo Billo, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Tirkiye û rejîma sûrî bi vî awayî fişar (zaxt) li ser Efrînê dikin ji bo ku ew vegere himbêza hukûmeta sûrî.

Şêxo Billo got jî ku mîlîsên girêdayî Îranê û hukûmeta sûrî kartên nasnameyên rûniştevanên bajarokên Nubul û Zehra, yên girêdayî Efrînê, stendin.

Partiyên ramyariyî (siyasî) û rêxistinên kurdî yên Sûriyê li dijî Tirkiyê yekdeng in. Rûniştevanên Qamişlî dibêjin ku ketina Tirkiyê nav Efrînê ne rewa (lêgal, şer'î) ye, ku divê ku hêzên hevbendiya navneteweyî ew nehêlin û ku ewê Kurd bi hemî hêzên xwe bersîva wê bidin.

***Di 28 Mijdar de***, bi şev, leşkerê tirkî bê rawestan bajarokê Bilbilê, yê girêdayî Efrînê, ji Rojavaya Kilisê, Kurdistana Tirkiyê, bombe kir. HSD bersîva wî da. Serbazekî (eskerekî) tirk birîndar bû.
*(rudaw.net, 19, 20, 21, 22 û 29.11.2017)*

***Şervanên asûrî û yên din***
Di nav YPG'yên kurdî de şervanên navneteweyî, ku ji wan Asûrî, hene. Ew şerrê leşkerê tirkî dikin. Yek ji van Asûriyan daxuyand ku mezzintirîn metirsî (tehlike) li ser Kurdistana Sûriyê ne Dewleta Islamî, lê Tirkiye ye.
*(rudaw.net, 26.11.2017)*

**DÊR EL-ZOR**

***Rizgarkirina tam***
***Di 02 Mijdar 2017 de***, bajarê sûrî yê Deyr El-Zorê bicarek ji Dewleta Islamî hat rizgar kirin. Ew bajarê dawîn bû ku di nav destên wê de ma bû. Bi vî awayî, wê hemî bajar li Sûriye û Iraqê hunda kirin. Hêzên rûsî bajar gelek bombe kir, ji bo piştgirîkirina hêzên erdî yên sûrî. Ev tevger di 18 Îlon 2017 de dest pê kiri bû.
*(rudaw.net, 03.11.2017)*

***Çavdêrîkirina bîrên pêtrolê***
Fermandarên hêzên kurdî "HSD" û yên Encumena Leşkerî ya Dêr El-Zorê daxuyand ku wan bîrên pêtrolê, ku li Rojhilata çemmê Firatê ne û ku mezzintirîn ên Sûriyê ne, stendin.
*(rudaw.net, 07.11.2017)*

**KOBANÎ**

***Bi sedan kes hunda bûne***
***Di 2013 de***, Dewleta Islamî bi sedan Kurdên Kobanî, ku li Reqqa, Til Abyad, Cerablus û Munbicê bûn, ragirti bûn. Heta nuha, gelek kêm ji wan hatin azad kirin û çarenivîsa yên din ne diyar e :

***Di 19 Sibat 2014 de***, nêzîkî 160 Kurd, ji bo dîtina kar, bi otobusê, ji deriyê sînorî yê Sêmalka ber bi Kurdistana Iraqê çûn. Lê, şervanên Dewleta Islamî ew li nêzîkî bajarokê Til Temrê, yê parêzgeha Hesîçê, ragirtin û ew birin Reqqa.

***Di 07 Gulan 2014 de***, 25 mamoste û karmendên Kobanî ji Helebê vedigeriyan. DAIŞê ew li nêzîkî bajarê Munbicê ragirtin.
*(rudaw.net, 17.11.2017)*

**RÛSYA**

***"YPG" malbatan radestî Rûsya dikin***
Li konfêranseke çapemeniyê, berdevkê YPG, Nûrî Mehmûdî, daxuyand ku 42 endamên malbatên Dewleta Islamî, ku ji wan 13 jin û 29 zarok, ji Rûsya re hatin radest (teslîm) kirin.
*(rudaw.net, 13.11.2017)*

**REQQA**

***Pûçkirina mînan û paqijkirin***
***Di 17 Mijdar de***, piştî seredana Kurdistana Iraqê (li jor binêre), nimînendeyê serokê amerîkî li bal Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî, Bret McGurk, li Reqqa bi berpirsiyarên cihî yên Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", ku YPG'yên kurdî bi rê ve dibin, re civiya. Wî ji wan re got ku divê ku mînên vî bajarî werin pûç kirin, kuçeyên wî werin paqij kirin û êlêktrîk were vegerandin.
*(rudaw.net, 19.11.2017)*

**ÇEKKÊN HEVBENDIYA NAVNETEWEYÎ**
***Di 19 Mijdar de***, berdevkê Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta islamî, Ryan Dillon, ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuyand ku ewê ev Hevbendî alîkariya xwe ji Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD" re bajo (dewam bike).

Li Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, YPG ji 100 tank bêtir, ku nuh vê Hevbendiyê dane wan, nîşan dan.
*(rudaw.net, 20.11.2017)*

Berpirsiyarekî pêwendiyên derve yê Kantona Cezîrê, Ebdul-Kerîm Umer, got ku pêwendiyên bi Amerîka re dajon (dewam dikin) û ku ew bê rawestan piştgiriya Hêzên Sûriya Dêmokratîk û Birêvebiriya Xweser dike.
*(rudaw.net, 28.11.2017)*

**RÊXISTINÊN JINAN**
Di 7 salên dawîn de, piştî kêmbûna bandora (te'sîr) hukûmeta sûrî li Kurdistana Sûriyê, jimara rêxistinên jinan û ya çalakiyên wan bêtir bûn. Ew projeyan pêk tînin û çalakiyan di warên aborî, tendurustiyî (saxî), ramyariyî (siyasî) û psîkolojîk de dikin. Û ew fêr (ders) û semîneran jî pêk tînin.
*(rudaw.net, 25.11.2017)*

**HILBIJARTIN LI KURDISTANÊ**

***2 şandên çavdêriyê***
Şandek ji Kurdistana Tirkiyê û yek jî ji Kurdistana Iraqê gihajtin Kurdistana Sûriyê, ji bo ku tê de çavdêriya (kontrol) hilbijartinên cihî (mehellî), ku ewê di **01. 12. 2017** de bibin, bikin. Ew li Encumena Bilind a Hilbijartinan civiyan.
*(avestakurd.net, 29.11; rudaw.net, 30.11.2017)*

**"PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***Qamişlî***
***Di 07 Mijdar 2017 de***, 4mîn kongreya Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" bû. Cuhanên Şoreşger ên partiya PYD (nêzîkî PKKê) êrîşî beşdaran kir û li wan xist. Ev yek, ji bo ku ENKS destûr (izn) ji berpirsiyarên "kanton"ê, ji bo kirina vê kongrê, ne stendi bû.
*(avestakurd.net, 08.11.2017)*

***Dêrik***
***Di 07 Mijdar de***, hêzên partiya PYD Ebdul-Rehman Qasim, endamê encumena navendî ya Partî Dêmokratî Kurdistan - Sûriyê "PDK-S", ragirt û ew bir ciyekî nenas.
*(avestakurd.net, 07.11.2017)*

***Efrîn***
Navenda Dêmokratîk a Mafên Mirov li Kurdistanê, ku li Hanovre, li Almanya ye, daxuyand ku di ***11. 10. 2017*** de, servîsên ewlehiyê yên PYD li Efrînê "Asayiş" Ebdul-Kerîm Mustafa Cimo, yek ji birêvebirên ENKSê, li mala wî ragirt û ew bir ciyekî ne diyar.
*(avestakurd.net, 09.11.2017)*

***Kobanî***
Bi dehan xwendekar li dijî biryara Birêvebiriya Xweser, a partiya PYD, ku xwendinê li dibistanên arizî (xusûsî, privés) qedexe dike, xwe pêşan da. Ev pergal (nizam, système) di dema serokê sûrî Beşşar El-Esed de hebû. Ji berê, xwendin li Kurdistanê bi erebî bû, lê nuha ew bi kurdî ye.
*(rudaw.net, 25.11.2017)*

**SEROKÊ SÛRÎ GEF LI HÊZÊN KURDÎ DIKE**
Serokê sûrî Beşşar El-Esed ji şandeke amerîkî re daxuyand ku ew tucar napejirîne (qebûl nake) ku Birêvebiriyeke Xweser a Kurdan hebe û ku ewê Kurdistana Sûriyê nîn be.

Esed gef li hêzên kurdî, HSD û YPG, jî kir (tehdîd kir) û got ku eger ew navçeyên rizgarkirî ji hukûmeta sûrî re venegerînin, ewê şerrê wan bike.
*(avestakurd.net, 05.11.2017)*

**VEGERA PENABERÊN KURD**
Bi sedan malbatên kurdî yên Sûriyê, ku di 2012 û 2013 de reviya bûn Kurdistana Iraqê, hêdî hêvî vegeriyan Kurdistana Sûriyê.
*(rudaw.net, 20.11.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**AMERÎKA**

***Piştgiriya Kurdistana Iraqê***
Çend parlementerên amerîkî daxuyaniyeke hevbeş li ber avahiya Kongrêsê (parlement) kir. Wan tê de êrîşên dawîn ên leşkerê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî li ser Kurdistana Iraqê tawanbar kirin û piştgiriya xwe ji hukûmeta Kurdistanê re nîşan da. Wan dilniya (te'kîd) kir ku Qasim Suleymanî, fermandarê hêza leşkerî ya îranî, ya bi navê "Hêza Qudsê", ya girêdayî Pasdaran (polîsê îranî), beşdarî van êrîşan bû.

Nimînendeya Herêma Kurdistana Iraqê li Amerîka, Beyan Samî Ebdul-Rehman, daxuyand ku hukûmeta amerîkî piştgiriya xwe ji Kurdistanê re dilniya (te'kîd) kir û ku bi Bexdadê re li ser wê peyivî.

Çend caran, Washington piştgiriya xwe ya xurt ji Kurdistanê re, di çarçeveya Iraqeke yekbûyî de, daxuyand.
*(rudaw.net, 01 û 22.11.2017)*

***Serbaz li Iraq û Sûriyê***
Gênêralê amerîkî Kenneth Mckenzie li konfêranseke çapemeniyê daxuyand ku jimara serbazên (esker) wî li Iraqê digihêje 5.262, li Sûriyê 503 û li Afxanistanê 14.000. Û wî got jî ku li Iraqê, ev serbaz rahênana (tedrîb) leşkerî dikin. Hêzên hevbendiya navneteweyî, bi rizabûna hukûmeta iraqî, li Iraqê ye, lê li Sûriyê wan nikari bû erêkirina hukûmetê bistînin, ji bo ku ew wan bi kuştina sîvîlan tawanbar (bi sûc) dike. Lê Amerîka bersîva wê dide û dibêje ku ev hêz bitenê rahênana hêzên dijberiyê dikin û ku şerr nakin.

Hêzên amerîkî alîkariya Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD" dikin û çend bingehên wan ên leşkerî li Kurdistanê û li Bakurê Sûriyê hene.
*(rudaw.net, 17.11.2017)*

## BRÎTANYA MEZZIN

***Piştgiriya Kurdistana Iraqê***
Jimareke lord û ramyarên (siyasî) brîtanî ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re dîtinên xwe li ser Kurdistana Iraqê ravekirin (got). Wan rewşa piştî giştpirsiya li ser serxwebûnê vekola (tehlîl kir) û welatê xwe ji bo bêdengiya wî li ser êrîşên leşkerê iraqî rexne kir.
*(rudaw.net, 04.11.2017)*

## FRANSA

***Piştgiriya Kurdistana Iraqê***
Hemî berpirsiyarên ramyariyî (siyasî) yên fransî, ji serok heta sênatoran, piştgiriya Kurdistana Iraqê dikin û dyalogekê di navbera Hewlêr û Bexdadê dixwazin.

Piştî civîneke van berpirsiyaran, şaredara Parîsê, Anne Hidalgo, bi ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re peyivî û soz da ku ji bo alîkarîkirina gelê kurd hertiştî bike. Wê jê re got ku Fransa dikare roleke girîng di alîkarîkirina Kurdan de bilîze, ji bo ku ew endama Encumena Ewlehiyê ya Neteweyên Yekbûyî "U.N." ye û girêdanên wê yên dîrokî bi Kurdistanê re, ji dema seredana Banû Danielle Mitterrand, hevjîna serokê berê yê fransî, François Mitterrand, hene.
*(rudaw.net, 04.11.2017)*

## MISR

***Serokê misrî digirî***
***Di 06 Mijdar 2017 de***, li Şerm El-Şeyx, Konfêransa Navneteweyî ya Cuhanan dest pê kir. Keça kurd a êzdî, Lemya Beşşar, tê de peyivî û li ser êşkenceyên ku Dewleta Islamî jê re, û ji keçên din re, kirin peyivî. Piraniya guhdaran, serokê misrî jî tê de, giriyan.

Ev in gotinên Lemya: *"Bi hezaran keçên weka min û ji min cuhantir ji aliyê cinsî (seksî) hatin êrîş kirin. Wan heta zarokan jî dibirin bingehên leşkerî, ji bo ku bibin DAIŞ (Dewleta Islamî). Ez salek û 8 mehan di nav destên wan de mam û min 5 caran tecrube kir ku birevim. Lê bombeyek li ser min û hevalên min teqiya. Ew hatin kuştin û ez bi giranî birîndar bûm. Piştî azadbûna xwe, min biryar stend ku ez çîroka xwe bi hezaran keçan li cihanê bidim nas kirin. Ez dibêjim ku Xwedê ez kutah (xelas) kirim ji bo ku ez bibim dengê hemî jinên şehîd li cihanê. Mixabin, hîn jî 3.500 keçên zarok ên êzdî di nav destên Dewleta Islamî de hene. Ji wan, çend endamên malbata min. Heta nuha, civata navneteweyî ji bo wan tutişt ne kir".*
*(rudaw.net, 06.11.2017)*

## QATAR

***Xwestina dyalogê***
Wezîrê karên derve yê Qeterê, Muhammed Bin Ebdul-Rehman El-Sanî, û serokwezîrê iraqî, Ibrahîm El-Ce'ferî, li Duha, paytexta mîriya Qatarê, civiyan. Piştre, wan bi hev re konfêranseke çapemeniyê kir. Ce'ferî got ku hebûna serbazên (esker) tirk li Iraqê nayê pejirandin (qebûl kirin), ku pêwendiyên Iraqê

yên stratêjîk bi hevsiyên (cîran) wê, nemaze Îran û Tirkiyê, re hene û ku divê ku pirs bi mêkanîzmên dyalogê bên çare kirin.

Wezîrê Qatarê xwest ku pirsên di navbera Hewlêr û Bexdadê de bi dyalogê werin çare kirin.
*(rudaw.net, 08.11.2017)*

**PARLEMENTA EWROPÎ**

***Pêşerojeke geş ji bo Kurdan***
***Di 18 Mijdar 2017 de***, Koma Hevaltiya Kurdistanê, ku ji parlementerên çend komên ramyariyî (siyasî) yên Parlementa Ewropî pêk hatiye, li vê Parlementê civiya. Wê bi awayekî kûr bûyerên li Kurdistana Iraqê ji 16. 10. 2017 de şirove kirin û pêwendiyên di navbera Bexdad û Hewlêrê de giftûgo kirin.

Li dawiya civînê, komê biryar stend ku rapporekê amade bike û wê pêşkêşî Parlementa Ewropî bike, ji bo ku fişar (zext, pression) li ser Yekîtiya Ewropî bike ku helwesteke wê ya zelal û bihêz li ser pirsên Iraqê hebe û ku ew fişar li ser Bexdadê û dyalogê bi Herêma Kurdistanê re bike.
*(rudaw.net, 08.11.2017)*

**4 WELATÊN ROJAVAYÎ**

***Sûriye çekkên kîmyayî bi kar tîne***
Di daxuyaniyeke hevbeş de, Amerîka, Brîtanya Mezzin, Almanya û Fransa serokê sûrî Beşşar El-Esed kir berpirsiyarê êrîşên bi çekkên kîmyayî li ser bajarokê Xan Şêxûn, li Sûriyê, di 04 Nîsan 2017 de, ku bû sedema kuştina 100 sîvîlan û bijehrbûna 500 kesan.

Di daxuyaniyê de tê gotin ku Rêxistina Qedexekirina Çekkên Kîmyayî "OPCW", ku girêdayî U.N.ê ye, ew yek rastand. Tê de hat gotin jî ku Dewleta Islamî ji êrîşên kîmyayî yên Îlon 2016 li ser Um El-Huş, li nêzîkî Helebê, berpirsiyar e.
*(rudaw.net, 08.11.2017)*

**ENCUMENA EWROPÎ**

***Buceya Tirkiyê kêm dibe***
***Di 18 Mijdar 2017 de***, Encumena Yekîtiya Ewropî civiya û biryar stend ku di 2018 de, 105 milyon € ji alîkariya ji Tirkiyê re kêm bike. Ev yek ji bo ku ew ji krîtêrên Yekîtiya Ewropî dûr dikeve. Ev cara yekemîn e ku ev Encumen alîkariyekê ji bo sedemên ramyariyî (sebebên siyasî) kêm dike. Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan gelek hêrs bûye.
*(rudaw.net, 18.11.2017)*

**AMERÎKA Û RÛSYA**

***Li Vyêtnamê rasthatin***
Li 25mîn Lutkeya (civîna bilind) APECê (Hevkariya Aborî ya Deryayê Pasîfîk li Asya), ku li Danangê, li Vyêtnamê, bû, serokê amerîkî Donald Trump û serokê rûsî Vladimir Putin li hev kir ku têkoşîna li dijî Dewleta Islamî bajon (dewam bikin) û yekîtiya neteweyî li Sûriyê biparêzin.
*(rudaw.net, 11.11.2017)*

**RÛSYA**

***Ewê serbazên rûs li Sûriyê bimînin***
Serokê Encumena Ewlehiyê ya Fêdêrasyona Rûsya, Victor Bondarev, daxuyand ku ewê Rûsya û Sûriya lihevkirinek li ser şandina pisporên rûs, ji bo pûçkirina mînan, wajo (imza) bikin. Û wî got jî ku ewê firoke, firokêyên bê pîlot, tank û çekkên giran li Humeymîn û Tartûsê bimînin.

Bondarev got jî ku welatê wî li dijî xwestina Amerîka ku li Sûriyê bimîne, ji bo têkbirina Dewleta Islamî, ye û ku amanca welatê wî çavdêrîkirina (kontrol) ezmanê vî welatî ye.
*(rudaw.net, 29.11.2017)*

**U. N.**

***3 milyon Iraqî penaber in***
Encumena penaberan a Neteweyên Yekbûyî "U.N." daxuyand ku piştî hatina Dewleta Islamî, 5 milyon û 300.000 Iraqî bûn penaber. Ji wan, ji 3 milyon bêtir hîn jî penaber in. Piraniya kesên ku vegeriyan çûn malên xwe û yên din jî, tevî

endamên din ên malbatên xwe, di nav avahiyên ku çêkirina wan hîn kutah (xelas) ne bûye dijîn.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

***Nebûna giftûgoyan li ser mîlîsên şîî***
***Di 22 Mijdar de***, nimînendeyê (temsîlcî) U.N.ê li Iraqê, Jan Kubis, li ser ketina leşkerê iraqî nav Kerkûkê peyivî, lê wî li ser mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî tutişt ne got.

Şanda U.N.ê li Iraqê (UNAMI) li dijî vegirtina (işgalkirin) herêmên kurdî yên li derveyî desthilata hukûmeta Kurdistanê (Kerkûk û Mûsil) ji aliyê van mîlîsan dernakeve.

***Kurd li Sûriyê***
***Di 28 Mijdar de***, di 8mîn civîna li ser Sûriyê de, U.N.ê çareyeke aşîtiyane ji bo borana (krîz) li vî welatî giftûgo kir. Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" beşdarî wê bû. Li derve, Kurdên Sûriyê xwe pêşan da.
*(rudaw.net, 23 û 29.11.2017)*

**EREBISTANA SUÛDÎ**

***ENKS fêdêralîsmê li Sûriyê dixwaze***
***Di 22 û 23 Mijdar 2017 de***, dijberiya sûrî li Riyadê civiya. Wezîrê suûdî yê karên derve, Adil Jubeyr, û şandê taybetî yê U.N.ê ji bo Sûriyê, Steffan de Mistura, beşdarî civînê bûn.

Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" 2 axaftin kirin û got ku divê ku Sûriye bibe welatekî dêmokrat û fêdêral.

Li dawiya civînê, çend biryar hatin stendin : Parastina yekbûna axa sûrî. Sûriye welatekî pirêtnîkî û pirçandî ye. Dabînkirina (garantî) mafên hemî pêkhateyan : Ereb, Kurd, Tirkmen, Suryanî-Asûrî. Pirsa kurdî beşek ji pirsa neteweyî ya Sûriyê ye. Rakirina hemî biryarên li dijî Kurdan. Vegerandina kartên nasnameyê û netewahiya sûrî ji kesên ku ji wan bêpar (mehrûm) mane re. Hukûmeta sûrî ya wêbê (ku ewê were) divê ku dêmokratîk û li ser bingeha nenavendîbûnê (ne merkeziyyet) be. Şerrê li dijî têrrorîsmê divê ku bajo (dewam bike).

***Di 24 Mijdar de***, nimînendeyê (temsîlcî) kurd ê di nav şanda dijberiya sûrî de, Hewas Egîd, bi wezîrê suûdî yê karên derve, Adil Jubeyr, re civiya. Wan rewşa li Sûriyê û mafên Kurdan li vî welatî giftûgo kirin.

Bi ser de jî, cîgira serokê Encuma Neteweyî ya Kurdî li sûriyê "ENKS", Fasla Yûsuf, û kesên din rastî vî heman wezîrê suûdî hatin û daxwaziyên Kurdan radestî wî kirin.
*(rudaw.net, 22, 24 û 26.11.2017)*

**BRÎTANYA MEZZIN**

***Şandek li Bexdadê***
***Di 21 Mijdar 2017 de***, encumena pêwendiyên derve ya parlementa brîtanî panêlek bi navê "Piştî bûyerên 16 Cotmehê, pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de" pêk anî. Di 16. 10. 2017 de, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî Kerkûk û navçeyên din ên kurdî vegirti bûn (işgal kiri bûn).

Lêgerê kurd li zanîngeha Kings College, Muhammed Ihsan, û lêgera jin Nezend Begîxanî, bersîvên pirsan dan û hukûmeta brîtanî bi neguhdana Kurdan tawanbar kir.

***Di 22 Mijdar de***, cîgirê rawêjkarê ewlehiya neteweyî ya brîtanî, Christian Terner, çû Bexdadê û rastî serokwezîr Heyder Ebadî, wezîrê parastinê Ifran El-Heyalîn û wezîrê hundir Qasim Eyrejî hat. Wan rewşa nuha û wêbê ya Iraqê û pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 22.11.2017)*

**KANADA**

***Giftûgo di navbera Hewlêr û Bexdadê de***
Wezîrê parastinê yê Kanada, Harjit Sajjan, daxuyand ku welatê wî ji bo pêşveçûna giftûgoyan di navbera Bexdad û Hewlêrê de dilxweş e, ku ew xwe naxe nav karên wan ên hundirî û ku tu aliyî nagire. Û wî got jî ku, weka endamên din ên hevbendiya navneteweyî, amanca wî ya sereke têkbirina Dewleta Islamî ye.
*(rudaw.net, 22.11.2017)*

**ALMANYA**

***Ala "YPG" li parlementê***

Di civîneke li parlementa almanî de, parlementera bi riha (esl) kurdî, Sevim Dağdelen, ku cîgira serokê Partiya Çep a almanî ye, ala şervanên kurd ên Sûriyê "YPG" bilind kir û hukûmeta almanî, ji bo qedexekirina duruşmên (slogan) wan, rexne kir. Beşek ji parlementeran piştgiriya wê kir û beşek jî ew rexne kir.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 22.11.2017)*

***Qedexekirina hukûmeta iraqî çûna Hewlêrê***

Wezîrê almanî yê karên derve, Sigmar Gabriel, dixwest ku biçe seredana Bexdadê, û piştre Hewlêrê. Lê hukûmeta iraqî jê re qedexe kir ku biçe Kurdistanê. Loma, wî seredana xwe ya Iraqê ilxa kir (ne çû).

Almanya ji Bexdadê re pêşniyar kiri bû ku ew navberkariyê (wasite) di navbera Bexdad û Hewlêrê de bike, ji bo çarekirina pirsan (problêman), lê hukûmeta iraqî ev yek red kir.
*(avestakurd.net, 24.11.2017)*

**TIRKIYE**

***Civîn li ser Dosya Kurdî***

Koma Fikrê Stratêjîk û Navenda Lêkolînan li ser Îranê li Istanbulê panêlek li ser "Dosya Kurdî û bandora wê li ser welatên Rojhilata Navîn" kir. Kesahî (şexsiyyet) û xwedîbiryarên girîng ên kurd, ereb û tirk beşdarî wê bûn. Kurdan, careke din, xwestinên xwe yên dyalogê nîşan dan.
*(rudaw.net, 26.11.2017)*

**KATALONYA**

***Civîna International Sosyalîst***

***Di 25 û 26 Mijdar de***, "International Socialîst" li Barselona civiya. Di daxuyaniya xwe ya dawîn de, wê got ku ew piştgiriya biciânîna destûra iraqî dike, hemî celebên tundiyê li dijî gelê kurd tawanbar dike, ku divê ku çareyeke aşîtiyane were dîtin û ku Kurd beşdarî desthilatê bibin. Buroya International Sosyalîst li Londonê ye. Ev partiyên kurdî endamên wê ne: Yekîtî Niştimanî Kurdistan "YNK", ya Kurdistana Iraqê; Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê "PDK-Î" û Partiya Dêmokratîk a Gelan "HDP", ya Kurdistana Tirkiyê.
*(rudaw.net, 28.11.2017)*

**ISRAÎL**

***Parastina Kurdên Sûriyê***

Wezîrê israîlî yê parastinê, Avigdor Liberman, li ser civîna 3 serokên Rûsya, Tirkiye û Îranê, ku di 22. 11. 2017 de li Soçî, li Rûsya, bû, peyivî. Wî got ku serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan tê de xwesti bû ku Kurdên Sûriyê bicarek werin danîn aliyekî (isolés). Liberman got jî ku ev Kurd neteweyê 2mîn li Sûriyê ne û ku li gel ku serokê sûrî Esed ji civaka elewî ya 3mîn li Sûriyê ye, ew ji 1970 de (bav û kurr) vî welatî hukm dike.
*(avestakurd.net, 28.11.2017)*

**IRAQ**

***Tecrubeya girtina ajansa kurdî "Rûdaw"***

Tora Mêdyayî ya Navneteweyî "ENEX", ku tê de 50 kanalên têlêvîzyonê li cihanê, ku ji wan Rûdaw, hene, Encumena Agahdarî û Mêdyayan, a hukûmeta iraqî, tawanbar kir, ji bo ku wê xwest ku Rûdaw were girtin.

ENEXê got ku ew bi saya Rûdawê nûçeyên dawîn ên Iraqê destine, ku Rûdaw bi awayekî gelek pispor "professionnel" kar dike û ku di tevgera Mûsilê de hergav li eniyên şerr e.
*(rudaw.net, 02.11.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

## BELJÎKA Û FRANSA

***3 Xelatên Navneteweyî ji fîlma kurdî "Zagros" re***




Fîlma "Zagros", a derhênerê kurd Sehîm Umer Xelîfe, ku ji Kurdistana Iraqê ye û li Beljîka dijî, Yekemîn Xelat "Grand Prix" a 44mîn Fêstivala Fîlm li bajarê Gentê, li Beljîka, stend. Ev festival ji 10 heta 20 Cotmeh (octobre) 2017 bû. 12 fîlm tê de rikberî (munafese, concurrence) kir. Piştre, ji 15 Mijdar de, ewê Zagros li 11 eywanên sînema li Beljîka were nîşan dan.

Zagros navê qehremanê fîlmê, şivankî kurd, e: Jin û 2 keçên wî ji Kurdistanê diçin Beljîka. Ew jî biryar distîne ku xwe bigihîne wan. Lê ew vedigere welatê xwe, ji bo ku gelek tiştan li ser jina xwe dibihîse.

Wêneyên fîlmê nemaze li Kurdistana Tirkiyê, û li Yûnanistan û Beljîka jî, hatine kişandin. Lîzvan (actors) pispor (professional) in: Yusuf Çetin, Feyyaz Duman, Suat Usta, Maaike Neuville, Halima Ilter û muzîkjen Birader.

Zagros berhemeke beljîkî-hollandî ye. "Productor"ên sereke Dries Phlypo û Sehîm Umer Xelîfe ne. Sênaryo ya Jean-Claude Van Rijckeghem û Sehîm Umer Xelîfe ye.

Zagros beşdarî 18mîn Fêstivala Navneteweyî ya Fîlm a Arras, li Fransa, ku ji 03 heta 12. 11. 2017 ajot, jî bû. Wê tê de 2 Xelat stendin: a "Baştirîn Derhêner", ku ji aliyê "jury" hat dayîn, û ya "Baştirîn Film", ji aliyê temaşevanan.

Ewê ev fîlm li fêstivalên navenetewyî, li Dubay, Stockholm û welatên din jî were nîşan dan.

Sehîm Umer Xelîfe 3 fîlmên kurt çêkirine : "Messie Bagdad", "Welatê Qehremanan" û "Nêçîrvanê Xerab". Wî li cihanê 98 Xelat stendine.

## FRANSA Û "U.N."

***Fîlmeke kurdî li "U.N."ê***

Feylesûf û nivîskarê fransî Bernard Henri Levy fîlmek li ser Kurdan, bi navê "Pêşmerge", çêkir. Wî ew li Neteweyên Yekbûyî, li New Yorkê, di 28. 11. 2017 de, li ber 600 temaşevanên ku 193 welatan dinimînin (temsîl dikin) nîşan da. Wî got ku ewê nîşan bide ku pêşgotiya kurdî *"Ji xeynî çiyan, dostên me nîn in"* ne rast e.

*(rudaw.net, 25 û 29.11.2017)*

## KURDISTANA IRAQÊ

***Google: ajansa Rûdawsê li pêş mêdyayên erebî***

Google Analitix daxuyand ku di Cotmeh 2017 de, tora mêdyayî ya kurdî "Rûdaw" li ber kanalên erebî yên mezzin bû: Rûdaw 15.43 milyon seredan (temaşevan), ango di xulekekê (deqqe) de 30.686 kes lê nêrî. El-Cezîre 15.83 milyon seredan, El-Erebiyye 22.40 milyon, SkyNews (erebî) 7.691 milyon. Lê jimara Ereban li Rojhilata Navîn digihêje 407 milyon û ya Kurdan jê gelek piçûktir e (40 milyon. Rûdaw ji Kurdistana Iraqê diweşîne. Buroya Kurdî).

*(rudaw.net, 08.11.2017)*

***Siwarekî polonî li Kurdistanê***

Ji 11 mehan de, Poloniyek, Christian Berger, li cihanê bi hesp digerre! Ew gihajt Kurdistanê û bi germî hat pêşwazî kirin. Wî got ku Kurdek pê re bi

erebe 10 km çû. Li Hewlêrê, rêxistina "12 Hesp" bi germî pêşwaziya wî kir. Wî got ku siruşta (tebîet) Kurdistanê gelek bedew e û ku Kurd pirr mêvanperwer in.
*(rudaw.net, 15.11.2017)*

***Projeyeke zanîngehî : Tîgrîs***
***Ji 08 heta 10 Cotmeh***, şandeke bilind a wezareta perwerdeya bilind a Kurdistanê çû bajarê Gutengenê, li Almanya, ji bo ku beşdar bibe civîna yekemîn a projeya zanîngehî "Tigris".

***Di 15 Mijdar de***, wezareta perwerdeya bilind a Kurdistanê daxuyand ku di Tebax 2017 de, Yekîtiya Ewropî pejirandi bû (qebûl kiri bû) ku pere bide projeya navneteweyîkirina zanîngehên Kurdistanê "Tîgrîs" û ku milyonek dolar jê re hatiye veqetandin.

Ev wezaret dibêje jî ku, di çarçeveya vê projeyê de, ewê xwendekarên Kurdistanê karibin lîsans û doktora li zanîngehên Almanya û Çêkya bixwînin.
*(rudaw.net, 15.11.2017)*

***Hevpeyvîneke têlêvîzyonî bi Dilbixwîn Dara re***




Bi hinceta (munasebet) Roja Navneteweyî ya Têlêvîzyonan, kanala Rûdawê hevpeyvînek bi Dilbixwîn Dara, Kurdekî Sûriyê ku li Kurdistana Iraqê dijî, re, di bernameya "Nû Roj" de, kir. Berê 22 salan, di 19. 05. 1995 de, Dilbixwîn Dara dest bi pêşkêşkirina nûçeyan li kanala Med TV, ku ji Bruksêkê diweşand, kiri bû. Ji çend salan de, ew nûçeyên Kurdistana Sûriyê li kanala Rûdawê pêşkêş dike.
*(rudaw.net, 21.11.2017)*

***Pêşangeheke keçên êzdî li Duhokê***
Bi hinceta Roja Têkoşîna Li Dijî Tundiya Li Hemberî Jinan, 35 keçên kurd ên ji ola êzdî, ku ji Dewleta Islamî hati bûn rizgar kirin, li Duhokê tablo û karên xwe yên destî (artisanat), li navenda wezareta tendurustiyê ya Kurdistanê, raxistin.

Heta nuha, vê navendê huner û karên destî yên cihê hînî 1.000 keçên kurd ên êzdî kirine.
*(rudaw.net, 26.11.2017)*

***Konfêransek li ser jinê li Hewlêrê***
***Di 27 Mijdar de***, bi hinceta Roja Navneteweyî ya Têkoşîna Li Dijî Tundiya Li Dijî Jinan, konfêransek li Hewlêrê bû. Kampanyeke 16 rojan, li hemî bajar û bajarokên Kurdistanê, hat daxuyandin.

Serokwezîr, Nêçîrvan Berzanî, jî, li ber konsul, nimînendeyên welatan û rêxistinên jinan, tê de peyivî.
*(rudaw.net, 27.11.2017)*

***Wergerandina pirtûka "Seher"***
Pirtûka çîrokan "Seher", ku ji aliyê girtiyê ji Kurdistana Tirkiyê, Selahettin Demirtaş (li jor binêre), hatiye nivîsîn, ji aliyê Ferhad Çomanî hat wergerandin kurdî, zaravê soranî, û ji aliyê Navenda Xezelnûs li Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, hat weşandin.
*(rudaw.net, 28.11.2017)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Fêstivala helbesta kurdî li Qamişlî***
22mîn fêstivala helbesta kurdî ji aliyê Yekîtiya Helbestvanên Kurd, li Qamişlî, hat pêk anîn. 40 helbestvan, ji bajarên cihê yên Kurdistanê, beşdarî wê bûn. Bi ser de jî, fîlmeke kurt li ser helbestvanê ku wefat kiriye, Ferhadê Îçmo, hat nîşan dan. Helbestvan Loriyê Têldarî, ji bajarê Dêrika Hemko, xelatek stend.

Berê borana (krîz) sûrî, helbestvanên kurd helbestên xwe bi dizzî, li gundan, dûrî çavên servîsên dizzî yên sûrî, dixwendin. Lê nuha, ev yek aşkere tê kirin.
*(rudaw.net, 12.11.2017)*

***Fêstivala şanoyê li Efrînê***

***Di 12 Mijdar de***, li Efrînê 3mîn Fêstivala Şano, "Mîtan", dest pê kir û ewê heta 26 Mijdar bajo. Ew ji aliyê encumena çandî ya Birêvebiriya Xweser hatiye pêk anîn. Ev yek, li gel rewşa şerr ku Efrîn dijî.

*(rudaw.net, 15.11.2017)*

***Çalakî ji bo zarokan li Qamişlî***

Yekîtiya Jinên Kurdistana Sûriyê çalakiyên hunerî û yên din ji bo zarokên 6-12 salî pêk anîn. Ev yek, ji bo alîkarîkirina wan ku pirsên (problêm) xwe ji bîr bikin.

*(rudaw.net, 21.11.2017)*

***Navenda jinên cuhan li Hesîçê***

Encumena cuhanên Birêvebiriya Xweser navendek ji bo jinên cuhan li Hesîçê vekir. Amanca wê karînên (qudret) veşartî, nemaze yên jinên cuhan ku kar nakin, werin aşkere kirin û bi kêr anîn (bi feyde bin).

*(rudaw.net, 26.11.2017)*

**KURDISTANA ÎRANÊ**

***Konsêrek ji bo erdhejê***

Stranbêjê kurd Şehram Nazirî û koma wî "Kamkar" konsêrek li Tehranê kir, ji bo piştgirîkirina malbatên qurbanên erdheja ku li Kurdistana Îranê, di 12. 11. 2017 de bû (li jor binêre).

*(rudaw.net, 21.11.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Pirtûkek li zîndanê tê nivîsîn***

Girtî Selahettin Demirtaş hev-serokê partiya kurdî HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan) bû. Wî, li zîndanê, nuh pirtûkeke çîrokan, a 144 rûpelî, bi navê "Seher", nivîsî. Ew ji aliyê weşanxaneya Dipnot hat weşandin.

Pirtûk nemaze li ser rewşa jinê li Tirkiyê, û rewşa ramyariyî (siyasî) li vî welatî, têkoşîna karkeran li dijî "businessmen"'an û zorbûna jiyana Kurdan li mêtropolên tirkî dipeyive.

*(rudaw.net, 25.11.2017)*

***Yariya hespan li ser berfê li Qersê***

Li hin gundên bajarê Qersê, dema ku berf dibare, gundî yariyeke hespan dikin. Li gundê Keleçê, yê bajarokê Selîmê, rûniştevanên vî gundî û yên Başköyê yariyeke hespan li ser berfê 2 demjimêran pêk anî.

*(rudaw.net, 28.11.2017)*

***Fîlmên bê pere li Amedê***

Şaredariya Amedê bê pere fîlm li Navenda Kongreyê nîşan dan. Jimareke mezzin ji xwendekar û mamosteyan çûn dîtina wan. Fîlma ku bêtirîn bala zarokan kişand "My Little Pony" bû.

*(rudaw.net, 29.11.2017)*

***Gewher li muzexaneya Cizîrê***

Li muzexaneya bajarê Cizîrê kevvirên giranbuha yên Çiyayê Cûdî hene. Dîrokzan û lêger Abdullah Yaşın ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku dema ku Çiyayê Cûdî teqiya bû, ev kevvirên giranbuha heta Nuseybîn û Hezexê belav bû bûn.

*(rudaw.net, 30.11.2017)*

**RÛSYA**



***Xelata serokê rûsî ji stranbêjkê re***

Di dema merasîmeke li Kremlinê, serokê rûsî, Vladimir Putin, Xelata Hunermenda Kedkar a Rûsya Fêdêral da stranbêja kurd Zara Paşa Mihoyan. Ew yek ji navdartirîn hunermendan li Rûsya û cihanê ye û bi ji 10 zimanan bêtir distirê. Wê bi sedan konsêr dane û 9 albumên wê hene. Her careke ku ew derdikeve ser dikê (sahne), dibêje *"Ez Kurd im"*.

*(rudaw.net, 24.11.2017)*

**ALMANYA**

***Peyker bi perçeyên erebeyan***

Peykersaz û wênekêşê kurd Zubeyr Yûsif peykeran (heykel) bi perçeyên kevn ên hesinî û yên erebeyan çêdike. Ew nuha li gundekî piçûk yê nêzîkî Bonê, li Almanya dijî. Ew di 1968 de li Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, bûye. Di 1990 de, wî peykertiraşiyê (sculpture) li Enstituya Hunerên Bedew, li Şamê, xwend. Wî nêzîkî 31 pêşangeh, tenê yan bi hunermendên din re, li Sûriye, Kurdistan û Ewropa, pêk anîne.

*(rudaw.net, 25.11.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Jona Mustafa bo hollandî û Chirine Gerits bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Jona Mustafa tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*


FÉDÉRATION WALLONIE-BRUXELLES


**Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel**